


## Derheq rewşa Rojavaya Kurdistanê Deftera Siyasî ya PDKÎ daxuyaniyek belav Kir

»»»» R:3





*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*

*www.agirimedia.org Hejmar (284) 21-08-2016 Buha (500) Tûmen*


Home Page > News > World News > Around The Globe

14th Of Av, 5776 Thu. Aug 18, 2016

## Iranian Kurdish dissident: "We see a potential Kurdish spring in Iran"

In an exclusive interview with JerusalemOnline, Kak Mustafa Hijri, the Secretary General of the People's Democratic Party of Iranian Kurdistan, noted the persecution that Iranian Kurds have experienced and how this has built up to a level where the Iranian Kurds are struggling to overthrow the Islamist regime in order to replace it with a democratic federal state that respects human rights.

Aug 15, 2016, 9:16AM | Rachel Avraham





## Mistefa Hicrî: Kurd dikarin bibin nawenda raperînê

»»»» R:3



## Kêşe di Tehranê de ye, ne li ser sînor

»»»» R:6

## Heseke jî bû armanca êrîşa neyarên Kurd



**Rayedarên ewlehî û leşkirî ên Kurdistana Rojava di çend rojên derbazbûyî de ragehandin ku, di çend rojên derbazbûyî de, bi awayekî berdewam, hêzên ser bi rejîma Îslamî ya Îranê û kirêgirtiyên Hizbullaha Lubnanê di êrîşa bo ser bajarê Hesekê de pişikdar bûne.**

Di vê derheqê de, Asiya Ebdullah , hevseroka Partiya Yekîtiya Demokratîk di hevpeyvîna tevî Radyo Ferdayê de ragehand ku, "Hikûmeta Îranê piştevaniyê dide Beşar Esed. Li her derekî dewleta Sûriyê bikeve tehlûkeyê, rejîma Îranê bona derbazkirina wê dest bi kar dibe, û hêzek li jêr navê "Berevaniya Nîştimanî" (Difa'i El-Wetenî) ji aliyê rejîma Îslamî ya Îranê ve hatiye rêkxistin, niha ev hêz e ku dixwaze li cihên weke Hesekê û Qamîşloyê aloziyan çê bike".

Hevseroka PYD'ê di doma gotinên xwe de dibêje ku, bê piştevaniyên rejîma Îranê û hêzên nêzîk ji rejîma Sûriyê, hêzên Beşar Esed nikarin li dijî baregehên Kurdan tev bigerin.

Asiya Ebdullah herweha zêde kir ku, "Niha dewleta Sûriyê li dijî Kurdan tev digere, û balafirên wê yên şer baregehên hêzên Kurdî û herweha xelkê sivîl dike armanca bombeyên xwe".

Bi sedema şer û pevçûn û bombebaranên çend rojên derbazbûyî, bi hezaran kes ji xelkê sivîl li bajarê Hesekê, ji tirsa kuştinê, mal û halên xwe bi cih hêlane, û awareyê bajarên din ên Kurdistana Rojava bûne.

Nûçegihaniya Firansayê ragehand ku, piştî êrîşa esmanî ya balafirên artêşa Sûriyê bo ser bajarê Hesekê, Amerîkayê roja 19'ê Tebaxê, li hemberî wan êrîşan balafirên xwe yên şer şandin derdora bajarê Hesekê.

Wezareta Berevanî ya Amerîkayê ragehand ku, balafirên şerker ên cura "F22" bona berbirûbûna balafirên artêşa Sûriyê, û parastin û berevaniya ji hêzên Kurdî li Hesekê, şandine derdora Hesekê.



## "Heşd" jî gefan li me dixo, çima em wisa lê hatin?

»»»» R:4



## Ne em wek Karayilan Turkiyê nas dikin, û ne jî Karayilan wek me Îranê!

»»»» R:5

## Sergotar

## Rexne yan tohmet?

Kerîm Perwîzî

Di civaka mirovahiyê de, her kiryar û reftareke mirov, dikare cihê pirsyarê û lêborînê û rexneya mirovên din be. Di rastî de, bi vê pêkê ku her gotin û reftara mirov dikare nîşandana riyekê be, bo mirovên din, da ku jê hîn bibin, û peyrewiyê jê bikin, dikare li ser jiyan û bîrkirina wan bibandor be, lewra mafên mirovên din ew e ku pirsyaran ji vê reftarê, yan gotinê bikin û rexne bikin.

Ew bas ku tê nav civakê û di asteke mezintir de, kiryar û lêdwanên girûp û partiyan rola zêdetir di jiyana takên civakê d eheye, û her bi vê pêkê jî, mafê tak û girûp û partiyan ew e ku rexneyan ji vê siyasetê bigrin, û kiryaran hizbên din jî rexne bikin.
Bi vê pêkê jî "rasan" a gelê Kurd li Kurdistana Rojhilat di gotar û dîskorsa PDKÎ de cihekî taybetî heye, û siyaseta vê partiyê ew e ku hemû partiyên Rojhilata Kurdistanê di vê diyardeya nû de, ku xwe bi navê "rasan" pênase dike, cihê wan bibe, û rola xwe tê de bilîzin. Lewra mafê hemû takên Kurdistanê û hemû girûp û partiyên Kurdistana Rojhilat û heya hemû tak û girûpên di nava Îranê de, û hemû partiyên siyasî di hemû beşên Kurdistanê de ye, ku pirsyara wan li "rasan" a PDKÎ hebe, û siyaset û kiryarên PDKÎ rexne bikin. Jibe rku vê siyaset û kiryarê ew qas bandora xwe li ser jiyan û siyasetê di Îran û Kuyrdistanê û hemû beşên din ên Kurdistanê de heye, û heya vê astê cihê vê diyar e ku rejîma Îranê piştî çend dehikan çewtekariyan li jêr navê serxwebûn di polênbeniyên cîhanî de, niha bûye koloniya Moskoyê û binkeyeke leşkerî dide Rûsiyê, di Hemedana tenişt Kurdistanê de.

Mixabin ku di herêma di navçeya Rojhilata Navîn de, sînorê rexneyan û tohmetan gellek caran tevlî hev dikin, û bi fêleke sade, ku hemû kes jê tê digihîjin, li jêr navê rê dana bi azadiya bîrkirinê û rexnegirtinê, boxtanan li siyaset û kiryareke siyasî dikin, ku mixabintir ew e ku, gellek caran çavkaniya wan boxtanan, dijminên gel û deshilatên serberedayî ên zal bûn, û hene, û gellek nezanane ji aliyê hinek kesan ve tê ducarîkirin, û renge xwe gellek jîrtir ji vê bizanin, ku li pey çewtekariyan bikevin.

## Amerîka wê li hemberî êrîşêm Esed, Hesekê biparêze



**Balafirên şer ên Amerîkayê li ser êrîşên xwe bona parastina Hesekê, ji êrîşên esmanî ên balafirên artêşa Beşar Esed berdewam in.**

Roja Înê berwarê 19'ê Tebaxê Pêntagonê ragehand ku, balafirên wan ên şer bi merema parastina şervanên "Yekîneyên Parastina Gel" li hemberî êrîşên esmanî en balafirên Beşar Esed, dest avêtine "Firînên Pedafendî".

Cêf Dîwîs Berdevkê Pêntagonê ragehand ku, ji roja Çarşemî 17'ê tebaxê ve, artêşa rejîma Sûriyê bi awayekî ne adilane êrîşên esmanî û bejayî birin ser binke û barekegên YPG'ê li Hesekê û eva jî ji aliyê me we nahê qebûlkirin.

Her di vê derheqê de Amerîkayê hoşdarî da Rûsiyê yê jî ku xwe ji bombebarana Kurdan biparêze, lê di hember de Mosko yê ragehand ku, êrîşê esmanî bo ser bajarê Hesekê ji aliyê balafirên wan ve nehatine encamdan, belkî ji aliyê balafirê şer ên artêşa Sûriyê ve hatine encamdan.
Fermandeyê artêşa Sûriyê di daxûyaniyekê de roja Înê 19'ê Tebaxê ku ji Televizyona Fermî ya dewletî ve hate belavkirin, Kurdên Kurdistana Rojava bi vê yekê tawanbar kirin ku êrîş birine ser nawendên dewletî û herweha petrola Sûriyê bi talan dibin û xelkê sivîl bi barimte digirin û bi giştî bûne sedema têkçûna ewlehiya derdorê.

## Bavê şehîdekî kurdistanê koça dawiyê kir

**Hecî '' Elî Ekber Rewşenî '' bavê şehîd ''Elî Eşref Rewşenî '' xelkê dewera Leylax a bajarê Dêwollanê koça dawiyê kir.**

Li gora nûçegehaniya kurdistanmedia, roja Yekşemî rêkevt 22'ê Gelawêja sala 1395'an Hecî Elî Ekber Rewşenî bavê şehîd Elî Eşref Rewşenî xelkê gundê ''Asiyawcu'' ê ser bi dewera Leylax a bajarê Dêwollan ê xatirê xwe ji jiyanê xwast.
Navbirî kesayetiyekî binavûdeg û cihê bawera xelkê dewerê bu.

Şehîd E'lî Eşref Rewşenî, pêşmergê PDKÎ, rêkevt 25'ê Banemera sala 1359'an ya Rojî ji aliyê rêjîma Îslamiya Îranê ve, li bajarê Hemedanê hat Îdamkirin.

PDKÎ sersaxiya xwe li binemale, û xizm û kesûkarên xwedê jê razî ''Hecî E'lî Ekber Rewşenî'' dike, û xwe şirîkê xema wan dizane.




## Bavê pêşmergeyeke PDKÎ koça dawiyê kir

**Seyîd "Sabir Secadî" bavê Hayide Secadî, pêşmergeya PDKÎ, li bajarê Merîwanê koça dawiyê kir.**

Li gora nûçeya ku gihîştiye malpera Kurdistanmedia, roja Înê 29'ê Gelawêjê Seyîd Sabir Secadî bavê Hayide Secadî pêşmegeya PDKÎ di temenê 60 saliyê de li herêma Kanîdînar a Merîwanê xatirê xwe ji jiyanê xwast.

Navbirî kesayetiyekî xweşnav û cihê baweriya xelkê herêmê bû, ku hemû demekê bi şanazî ve bas ji pêşmergebûna keça xwe di nava refa PDKÎ de dikir. Termê navbirî di nava girseya xelkê herêmê de bi axê hate spartin.

PDKÎ sersaxiyê dibêje xizm û kes û karê Hayide Secadî û xwe hevparê xema wê dizane.



## Mistefa Hicrî: Kurd dikarin bibin nawenda raperînê

**Misfeta Hicrî sekreterê giştî yê Hizba Demokrata Kurdistanê, di hevpeyvîneke taybet digel malpera "Jerusalem Online" bas ji zulm û zordariya rejîma deshilatdar li Îranê, derheq gelê Kurd û potansiyêla Buhara Kurdî di Îranê de kir.**

Mistefa Hicrî di hevpeyvîna xwe de, bal kişande ser zordariya rejîma Îslamî li Îranê û ragehand ku, zulm û zordarî û apartayd a rejîma Îranê derheq bi gelê Kurd bûye sedem ku, Kurdên Kurdistana Rojhilat li dijî rejîma Îslamî ya Îranê û di pêxema avakirina sîstemek demokrat û federal de, şoreşek azadîxwazane dest pê bikin, da ku bi vî rengî bigihîjin mafên xwe yên berheq û rewa.

Hicrî di beşek din a gotinên xwe de serbarê îşare bi îdamkirinên bi kom yê girtiyn Kurd, eşkere kir ku rejîma Îranê, çalakên siyasî û daxwazên wan bi neyasayî dizane, û xebatkarên siyasî ên Kurd girêdayî bi Îsra'îl û Amerîkayê, û di çend rojên derbazbûyî de jî bi Erebistana Si'ûdiyayê ve girê dide, lewra eva jî dibe sedemek bona vê ku Kurd dest bavêjin şoreşê. Mistefa Hicrî di beşek din ya hevpeyvîna xwe de piştî vê ku li ser piştevaniya rejîma Îranê ji terorîszmê û destxitina di nava karûbarên welatên din de diaxive, tekez dike ku, li Rojhilata Navîn Kurd bûye fakt û xwedî bandor e, û gereke hemû welatên


BREAKING NEWS 15 Jewish woman nearly sold to ISIS reunites with family in Israel

Start Download - View PDF
Convert Any File to a PDF. Get the Free From Doc to Pdf App!

Home Page > News > World News > Around The Globe

Iranian Kurdish dissident: "We see a potential Kurdish spring in Iran"

In an exclusive interview with JerusalemOnline, Kak Mustafa Hijri, the Secretary General of the People's Democratic Party of Iranian Kurdistan, noted the persecution that Iranian Kurds have experienced and how this has built up to a level where the Iranian Kurds are struggling to overthrow the Islamist regime in order to replace it with a democratic federal state that respects human rights.

Aug 15, 2016, 9:16AM | Rachel Avraham
Tags: Barack Obama, Interviews, Iran, JOL Selected

14th Of Av, 5776 Thu. Aug 18, 2016 | 11:41

START DOWNLOAD
3 steps to Fast Package Tracking
1. Click to Begin
2. Download App
3. Track Packages Free - Instantly
PackageTracer

NEWSLETTER SIGNUP
Email Address JOIN

demokrat û azadîxwaz alîkarê Kurdan bin, û pişta Kurdan bigirin û li hember de jî Kurdê Îranê xwedî potansiyêleke baş e, lewra Buhara Kurdan misoger e.

Hicrî bi eşkere radigehîne ku, em weke gelê Kurd dikarin bibin nawenda raperînê di Îranê de, û ev potansiyêl di gelê Kurd de heye, lê potansiyêla me hewcehî bi piştevaniyê heye, jiber ku niha pitir ji 70 kîlomêtir ji sînorên di navbera Kurdistana Başûr û Rojhilat di bin kontrola me de ye, û herweha PDKÎ avakerê Kongireya Netewên Îrana Federal e, pitir ji %50 ji xelkê Îranê, piştevaniyê jê dikin, û PDKÎ jî pitir ji 70 sal e ku xwediyê rêberiya şoreşa Kurdên Rojhilat dike, ku 10 milyon nifûs heye.

## Derheq rewşa Rojavaya Kurdistanê Deftera Siyasî ya PDKÎ daxuyaniyek belav Kir

**Deftera Siyasî ya PDKÎ derheq rewşa Rojavaya Kurdistanê û reftara Asayişa Rojavaya Kurdistanê daxuyaniyek belav kir, ku deqa wê weha ye:**

Di rojên borî de, û di rewşekê de ku rewşa Sûriyê roj bi rojê hestiyartir dibe, û hewcehiya yekîtî û yekhelwestiya Kurd di Kurdistana Rojava de xwe zêdetir derdixe, mixabin, em şahidê çend bûyer û kiryarên kirêt ên wekî girtin, û derxistin û azardana endamên serkirdayetiya çend hêzên Kurdî ji aliyê hêzên Asayişa Kurdistana Rojava, û di çend bajarên vê para Kurdistanê de bûn.

Ew cure kiryarane, derheq bi part û rêkxirawên din ên Kurd, ne tenê alîkariya yekîtiya Kurd di pêxema desteberbûna mafên wê de nake, belkû kêşeyên navmala Kurd di Kurdistana Rojava de kûrtir dike, û zirarê digihîne berjewendiya Kurd di vê para Kurdistanê de.

Deftera Siyasî ya PDKÎ ku hertim palpiştê xûşk û birayên Kurd ên xwe, di Kurdistana Rojava û piştevanê dabînbûna mafên wan bûye, û niha jî piştevanê wan e, wan serederiyên Asayişa Rojava bi nerewa dizane. Her di vê derheqê de, daxwaza me ya biratî ew e ku, hemû hêz û aliyên Kurd di Sûriyê de, dev ji her kiryarekê berdin, ku metirsî be li ser yekîtiya Kurd, û hemû yekdeng bin, li ser berjewendiya doza Kurd di Kurdistana Rojava de.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**18.08.2016**
**28.05.1395**




## Waşintonê îtiraf kir ku 400 miyon Dolar bac daye Îranê

**Dewleta Amerîkayê îtiraf kir ku di demsala zivistana derbazbûyî de bona serbest berdana girtiyê xwe di Îrabê de 400 milyon Dolar bac daye karbidestên Îranê.**

Piştî dayîna hewlên zêde yên dewleta Amerîkayê di pêxema veşartina mijara wan 400 milyon Dolaran ku ji aliyê Waşintonê ve bo Îranê hatine şandin, lê pêdagiriya Komarîxwazan bûye sedem ku Wezareta Karê Derve yê Amerîkayê bi fermî ragehand ku Amerîkayê li hemberî serbestberdana hemwelatiyên xwe ji aliyê Îranê ve, 400 miyon Dolar bac daye rejîma terorîst ya Îranê.
Roja Pêncşemî 18'ê Tebaxa 2016'an Can Kêrbî yê berdevkê Wezareta Karê derve yê Amerîkayê ragehand ku, me 400 milyon Dolar li hemberî serbestberdana 5 hemwelatiyên xwe ku di Îranê de destbiser bûn, daye rejîma Tehranê.
Rayedarên Amerîkayê ragehandin ku, ew 400 milyon Dolar yekemîn beş (Qist) ji 1 milyard û 700 milyon Dolarê "Cerîme" (Xerame) ya Amerkayê ye ku, li ser biryara dadgeha "Lahê" qirar bû ku, li hemberî keysa kirîna çek û teqemeniyên Amerîkayê ji aliyê rejîma Şah ve, bo Îranê bê şandin.
Lê rojnameya "The Wall Street Journal" ê roja 2'ê Tebaxê di raporekî de eşkere kir ku, dîplomatên Amerîkayî heyva derbazbûyî li Siwîsê, tenê dema xatircem bûn ku balafira hilgirê wan girtiya ji balafirxaneya Mêhrabadê ji erdê rabû, wan 400 milyon Dolar pereyê "Kaş" daye rejîma Îranê.



"The Wall Atreet Journal"ê hewreha eşkere kir ku pereyê ku bi rejîmê hatiye dayîn, di şiklê "erz"ên Curbicur de bûye, ku di sindûqên dar de hatine veşartin.

# "Heşd" jî gefan li me dixo, çima em wisa lê hatin?



Elî Munezzemî

Başûra welatê me ji çend salan piştî raperînê ve heya sala 2013'an, û berî vê ku ji aliyê karbidestên Bexdayê ji aliyekî ve û DAÎŞ'ê ji aliyê din ve bikeve ber hereşe û metirsiya êrîşa çekdarî û dorpêçên aborî û siyasî, karîbû ku rêyekî dûr û dirêj ji pêşvebirina welat bipîve. Di heyamekî gellek kurt de pêşkevtinên Kurdistana Başûr gehîştin astekî ku, Hewlêr bibû rikeberê Dubêy bona rakêşana sermayeyên bîhanî.

Bona rêgirtin ji wan pêşveçûnên bilez ên Kurdistana Başûr, dujminên gelê me yekdeng û bihevre li dijî hikûmet û gelê Kurd li Başûr û berjewendiyên netewame li her derekî hewl û çalakiyên xwe xistin kar û bona serxistina pîlanên xwe yên qirêj, ketine çêkirina tevdanîkarî û duberekiyê di navbera part û aliyên siyasî ên Kurd bi merema jinavbirina tebayî û yekitiya gelkê Kurd.

Çi caran çavê dujminên me serkewtinên gelê me nabînin û tu carî naxwazin bibînin ku deshilatdarên me li Başûr, bi rizgarbûna vê beşa Kurdistanê û avakirina sîstemek demokrat û bidestvegirtina hêz û birêveberiya çavkaniyên berfireh ên samanên xwezayî di Rojhilata Navîn de, pêngavan ber bi asoya serkevtina yekcarî şil nake, belkî ji rêya gehîştin bi van armancên pîroz pêdagir û mikurtir in. Her ew deshilata ku piştî serhildana DAÎŞ'ê bûye hêza revandin binajoxwaziya olîm û yekemîn hêza çekdar ya xweragir bû ku, berevanî ji buhayên mirovî li hemberî terorîstên DAÎŞ'ê dikir û bûye sedema wêzarkirina dîktatorên zalim.

Bona rêgirtin ji pêşveçûnên bilez ên Kurdistana Başûr, dujminên gelê Kurd yekdeng û bihevre, bihêzbûn û pêşveçûna Kurdistanê di her warekî de, dibe sedema nîgeranî û dijatiya wan û, pêşkevtinên han bi êrîşa bo ser berjewendiyên xwe dihesibînin, lewra jirêyên curbicur ve hewla têkdan û nezokkirina wan pêşkevtinan didin. Di vê derheqê de em dibînin ku, dijatiya wan bi awayê gefxwarên zarekî yê karbidestên herî bilin yê wan welatan û axaftinên bi zimanê çek, an ku gefên nerasterast çek û kerestey leşkirî û herweha temrîna leşkirî û gefên sitratejîk bi pîlan û pirogramên dirêj mideh xwe derdixin.

Li bîra hemû kesekî de maye ku berî jidayîkbûna DAÎŞ'ê, "Sipaya Dîcle" liser biryara karbidestên Bexda û Tehranê gef ji Kurdan dixwarin. Niha jî bas ji vê têkirin ku pîlana Heşda Şe'nî here bona êrîşkirin bo ser Kurdistana Başûr. Gefa Sipaya Dîcle bona rêgirtin ji vegeriyana Kerkûkê bû bo ser Herêma Kurdistanê, û gefên Heşda Şe'bî jî bona şikandina hêviya serbixweyî û tarîkirina sipêdeya gehîştin bi armancên gelê me ye.

Kakila her du gefan vê yekê der dixe û gefên sade û biçûk ninin. Ev gef xwarin vê rastiyê derdixin ku, dujminên me hertim her beşekî Kurdistanê bi gefekî sitratejîk dibînin û bona lêxistina derbeyan li Kurdan jî pîlanên sittratejîk dadirêjin, û dema ku hêz û şiyan hebin, pîlanên xwe cîbicî dikin.

Li vir de pirsyarek xwe nîşan didem ev jî eva ye gelo hukûmeta Kurdî li Kurdistana Başûr bona parastina xwe dikare çi bike, û bo vê meremê jî çi di dest de heye?

Di vêr de merem ji parastinê eva ye ku Hikûmeta Herêmê bikare herêma di bin deshilata xwe biparêze, mafê deshilatdariya xwe bparêze û kontrol hebe liser axa dibin kontrola xwe û çavkaniyên binerd û sererd ên Kurdistanê be. Armanca sereke ji vê parastinê dabînkirina asûdeyî û bilindkirina asta sitandard a jiyana xelkê û pêşxistin û parastina bazirganiyê û herweha rêgirtin ji teror û dizîna zaniyariyên welat û ... hwd ye.

Bona vê ku Hikûmeta Herêmê bigîje armancên xwe, gerek hewê bide bibe hikûmetek xwedî piristîj û cihê rêzê. Lewra gerek hewlê bide di yekem pêngav de di warê çekdarî de xwe bihêz bike û piştre derfeta serkewtin û xwe bihêzkirin di hemû warên weke zanist, teknolojî, werziş û di her wareke din de ku dikare bibe sembol, bide.



Li herîma ku Kurdistan têde hilketiye eqliyet û bîrûraya demokratîk mixabin cih negirtiye û venegeşiyaye û netenê neteweyên herêmê rêzê ji hevo nagirin, belkî evên ku lewaz û bêhêz in, dibin armanca êrîşa cîranên xwe, û di vî warî de jî Kurdistan xwediyê pişka şêr e û hertim Kurd bûye qurbaniyê êrîşa netewên din. Lewra hewce ye ku Hikûmeta Herêmê êrîşa Heşda Şe'bî bi micit werbigire, û di dema hewce de amadegiya vê hebe ku berevaniyê ji xwe bike.

Gellek caran waûsa xûya dike ku serbarê fîdakarî û qehremanitiya hêza pêşmerge, Hikûmeta herêmê li hemberî êrîşên derekî, serbarê vê ku digel kîjan dujminê gelê me be, lawaz xwedî derdikewe, gelo sedema vê lewaziyê vedigere ser çi tiştekî? Hemû nîşan vê rastiyê nîşan didin ku ev lewazî berî vê ku hokar û sedema derekî li piştê be, sedema navxweyî heye.

Nabe bihê jibîrkirin ku bona darêtina siyaseta derve, gerek hem faktorên derekî û hem jî faktorên navxweyî bên liberçavgirtin. Dujminên me gellek bibaşî li ser nakokiyan kar dike û bi merema lewazkirina me partî û aliyên siyasî weke karta gîwaşê li dijî hevdu bikar tînin, da ku bikarin bi vî rengî poyenên (Êmtyaz) zêdetir ji gelê me bistînin.

Li Kurdistana Başûr de hêz û aliyên siyasî biser çendîn aliyan de parve bûne, û dû ji berjewendiyên netewî, tenê liser hinek tiştî lawekî û ne hewce, rewşek ne saxlem afirandine ku derfeta mifahwergirtina xirab bi dijî gelê me çê kirine. Her eva jî bûye sedem ku Hikûmeta Herêmê di wan çend salan de nekarê di warê dîplomasiyê de, eva ku hewceyî hikûmetekî be ji xwe nîşan bide. Tu sînorek di navbera dîplomasiya partiyan û dîplomasiya Hikûmeta Herêmê de nine. Her rojê partiyek serdana welatekê dike û girêbesteke aborî wajû dike û rêkkewtinê dike liser hisaba gelê Kurd. Lewra di rastî de hekî çeka dîplomasiyê bi taybetî digel welatên cîran û liserweyî hemûyan digel Bexdayê, hekî bêjim bi tewahî di destê Hikûmeta Herêma Kurdistanê de nemabe, dikarim bêjim ku gelek lewaz û bê buha bûye.

Her ev nakokî jî bûne sedem ku dujminên me piropagandeya nerênî liser deshilata Kurdî bikin û di warê aborî û teknolojî û çekdarî û .... hwd de, Kurd lewaztir bikin û bona bandor xistin a paşekêşepêkirina Hikûmeta Herêma Kurdistanê, ji biryar û deskewtên xwe, guşarê dixin ser serkirdeyên Kurdan.

Piştî jikarketina parlimana Herêma Kurdistanê, tu nawendekî berçav nine ku, bikare siyasetên navxweyî û derve binirxîne û girêbestên navnetewî ên Hikûmeta Herêma Kurdistanê kontrol û bipejirîne.

Ez hêvî dikim ku aliyên siyasî bi liberçavgirtina rewşa niha û berjewendiyên dirêjmideh ên gelê me, bona bidawîanîna bi van hemû kêmasî û lewaziyan, û bi micitî wergirtina gefên dujminên derve, lidewra hevdu kom bibin û neteweperestane û lojîkî rêçareya hewce peyda bikin bona derbazbûn ji vê qonaxa hestyar û nazik de.

# Ne em wek Karayilan Turkiyê nas dikin, û ne jî Karayilan wek me Îranê!



**Mecîd Heqî**

Çend meh berî niha Murad Karayilan endamê Konseya Serokatiya Partiya Karkerên Kurdistanê PKK di hevpeyvînekê de, li bersiva pirsekê derbarê awayê xebata wan li Bakurê Kurdistanê û Turkiyê got: «Em li Turkiyê mezin bûne, em ligel sîstema perwerdeya Turkiyê elimîne, dîrok, ziman, siyaset û liv û tevgerên xwe me li wir xwendine…. Kes weke me dewleta Turkiyê nas nake û mîna me ne şareza ye ku çawa ligel dewleta Turkiyê tevgerê bike, û dijberiyê bike. »

Di şevên borî de birêz Murad Karayilan di hevpeyvînekê de ligel Televizyona Newroz de, derbarê xebata Rojhilata Kurdistanê û awayê xebata wê beşa Kurdistanê dibêje: «Nabe xebata çekdarî li dijî Komara Îslamî bê kirin, belkî hewce ye xebata sivîl were pêşxistin, ji ber ku ger tu xebata çekdarî li dijî Komara Îslamî ya Îranê bimeşînî, ev yek dikeve xizmeta Turkiye û Erebistana Seûdî. » Bi awayekî lojîkî di bersivên Karayilan de gellek bi zelalî û eşkere, navborî xwe û PKK beşek ji « Hîlala Şîe » dizane, û gotinên wan dubarekirina heman wan tometan e ku Komara Îslamî ya Îranê ji zimanê karbidestên siyasî û leşkeriyên xwe yên bilind bas kiriye, û beşek ji opozîsyona nasiyonalîst a Îranê jî heman tişt dicûn. Lê ger bi kurtî be jî bicî dibe ku em bîra Karayîlan bînin : «Em bi sedan sal in ligel dewleta navendî ya Îranê xebatê dikin, di çarçoveya sîstema perwerdeya wî welatî de hatine perwerdekirin, me ligel wan riftar kiriye û tevgerên me hebûne, em zimanê wan dizanin, qanûnên wan dinasin, em nasyar in bi sîstema «Welayeta Mutleq a Feqîh» û em şareza ne li ser kultur û sîstema bîrkirina Îraniyan.

Lewma em baştir ji te dizanin çawa xebatê bikin û çi rêyekê bo xebata xwe hilbijêrin. Me gellek beriya te dest bi xebatê kiriye, û me ezmûna rizgarkirina bajar û gundên Kurdistanê heye. Em evqas berpirsyarane tevgeriyane ku di dema pêwîst de bona ku xelkê sivîl û bê tawan nebe qurbaniyên êrîşên rejîma Paşayetî û Komara îslamî, Serokkomarê me Pêşewa Qazî Mihemed xwe kiriye goriyê gelê xwe, û li pêşberî mirinê de « kesekî herî tirsinok » nebûye. Pêşmergeyên me di dema hêrişa



Komara Îslamî bo ser gund û bajarên Kurdistnê bona parastina xelkê Kurdistanê, paşde vedikişiyan li wan ciyan, û gund û bajar nekirin goriyên siyasetên xwe.»

Dema partiyek bû bi «medah» û parêzerê berjewendiyên dewleteke dagîrker, îdeolojiya wê bû bi sedema xesardana hêz û karîna netewî, her dema egera vê yekê heye bi navê berjewendiyên beşekê, berjewendiyên netewî û mirovên neteweya xwe bixe metirsiyê.
Rojhilata Kurdistanê ligel hemû pirsgirêkan û kêmasiyên xwe derbarê bizava siyasî û rêberiya siyasî ya xwe, di asteke evaqs bilind a rewşenbîrî, kultûrî û exlaqî de heye, ku baş bizanibe çawa xebatê bike, û bê dirûşmdan û bêy vê yekê ku dest bi demargurjiyê bike, xebateke îdealîstane û serbixweyane û tenê di çarçoveya berjewendî û qazancên netewî de bi rê ve bibe.

Eger partiyên Rojhilat û bi taybet PDKÎ bi radeya 1 ji sedî ya Partiya Karayîlan, xweşxizmetî bo dewleta Turkiyê û «projeya Erebistana Seûdî» bikirana, niha xwedî çendîn kanalên televizyonî û ragehandinên mezin dibû, û şev û roj siyaseta xapandin û çewaşekariyê belav dikirin. Cudahiya me eva ye ku em hevpeymanê lîstikên dîktator û şerxwazên herêmê nînin.

## Larîcan: Dibe hêza me ya çêkirina bombeya navikî bigihîje 48 demjimêran

**Mihemed Cewad Larîcanî, alîkarê serokê Dezgeha Qazayî ragehand ku dibe hêza me ya çêkirina bombeya navikî bigihîje 48 saetan.**

Li gora nûçegihaniyan, Mihemed Cewad Larîcanî, alîkarê serokê Dezgeha Qazayî di warê karûbarên navneteweyî de, di gotûbêja bi nûçegihaniya “Tesnîm” re ragehand: “Tişta ku dikare Rojavayiyan ji êrîşa li dijî Îranê poşman bike, hêz û qaveta me ya di warê hesteyî de ye. Rojavayî li ser vê baweriyê bûn, ku em dikarin di du mehan de bombeya hesteyî çê bikin, û hinek jî li ser vê baweriyê bûn, ku di dema du heftiyan de Îran dikare bibe xwediyê bombeya navikî. Lê niha ew dibêjin Îran, wê sê salan bikêşe heya bikarin bombeya hesteyî bi dest bixin, lewra hêza me di warê bandora derûnî li ser wan de, gellek dakete xwarê.

Mihemed Cewad Larîcanî, alîkarê serokê Dezgeha Qazayî herwisa got ku dibe em karekî bikin, ku texmîna wan li ser hêz û qaveta me ya bombeçêkirinê bibe 48 saet. Rast wekî Japoniyan, ku niha wan bombe tuneye, lê hêza wan ew qas e ku dikarin di 48 demjimêran de yekem bombeya xwe çê bikin.

Mihemed Cewad Larîcanî, alîkarê serokê Dezgeha Qazayî di dawiya gotûbêja xwe ya bi Tesnîmê re got: “Ez nabêjim ku em li pey çêkirina bombeya navikî bikevin, jiber ku ez di warê stratejîk de dijî vê yekê me, lê nabe ku em hêza xwe ya piratîkê ji dest bidin.

## Nexweşxaneyeke Şîrazê, keça 12 salî ya Efxanî çareser nekir

**Letîfe Rehmanî keça 12 salî ya Efxanî ku di nexweşxaneya Nemazî ya Şîrazî de hatibû razandin, bi sedema “qedexebûna karê pêwendkirinê bo hevwelatiyên ku bi awayê neyasayî hatine Îranê”, jiyana xwe ji dest da.**

Li gora nûçegihaniyan, Keça 12 salî ya Efxanî ku nexweşiya cerg hebû, û dibe bi karê “pêwendkirin”ê, navbirî nexweşiya wê hatina çareserkirin, lê pizişkên nexweşxaneya Nemazî li Şîrazê bi vî ragehandin, ku Letîfe û malbata wê, bi awayê neyasayî hatine Îranê, lewra ew nikarin ku karê “pêwenda cerg” jê re encam bidin.

Bavê Letîfê di vê derheqê de got: “Nêzî du heftiyan e, ku keça min di nexweşxaneyê de hatiye razandin, lê ez îro şahidê mirina wê bûm”.
Wî herwisa got: “Keça min bi piyên xwe hate nexweşxanê, lê niha heta termê wê jî radest nakin, û dibêjin ku dibe 17 milyon Tûmenî bixî nav hesaba nexweşxanê, da ku em termê keça te radest bikin”.





## Kêşe di Tehranê de ye, ne li ser sînor



**Kerîm Perwîzî**

Rejîma faşîstî-Îslamî a Tehranê, ku berdewam û hertim siyaseta çewtekariyan û serkutê, ji bingehên darêtina vê pêkhateya dijî mirovî bûn, wisa nîşan dide, ku tu kêşeyek di Îranê de tuneye, û ya heyî, ji riya sînoran ve, û bi destê bîhaniyan, û dezgehên ajanê yên welatên din ve bo Îranê tê şandin, û hekî sînoran tund bikin, û digel welatên derdorê li hev kirin, bo parastina sînoran, êdî tu tiştek namîne.
Ew siyaseta biyom ya Komara Îslamî ya Îranê, çend armancên qirêj dipêke, ku pêk tên ji:

Yekem: Wisa nîşan bide ku Komara Îslamî digel xelkê Îranê û neteweyên belengaz tu kêşeyek tuneye, û ew bi dilxweşiyeke bêqas di hemberî rejîmê de, jiyana xwe derbaz dikin, û rejîm rehmê bi wan dike. Bi vî awayî wisa nîşan dide, ku hekî di nava xelkê de kesanek hebin, ku nerazîbûneke wan jî hebe, her bêdeng in, û peyrewiyê ji rejîmê dikin.

Eva di demekê de ye, ku hemû neteweyên belengaz ên Îranê, û beşeke zêde ji neteweya Fars jî, ku xwazyarê azadiyê ne, rejîma Îranê bi rejîmeke nerewa dihesibînin, û ji her derfetekê bo nîşandana nerazîbûna xwe di hemberî rejîmê de mifahê werdigrin. Neteweyên Îranê û bi taybetî neteweya Kurd, rejîma Tehranê wekî rejîmeke faşîstî ya serkutkar nas dikin, ku bi peyrewîkirina ji xeta tundajoyiya Îslamî, ji cureya DAÎŞ a Wilayeta Feqîhî, bi hezaran kesî ji nav birine.
Duyem: Dixwaze bi çewtekariyan û xapandina bîrûraya giştî, û balkêşana wan bo aliyê derveyî sînoran, bêjne welatên derdorê, ku hûn çavkaniya kêşeyan in di Îranê de, û ew dibe ku erka parastina sînoran bigrin stûyê xwe.

Bi vî rengî bo mînak di pirsa Kurd de, bixwaze ku berpirsyariyan li ser milê xwe hilîne, û Kurdistana Rojhilat û Herêma Kurdistanê berde canê hevdu, û kêşeyek ku rejîma Îranê çavkaniya wê ye, bike kêşeya navmala Kurd, di du beşên curbicur ên Kurdistanê de.
Di demekê de ku Kurd û Kurdistan baş dizanin ku Komara Îslamî ya Îranê ye, ku hemû maf û azadiyên xelkê binpê kiriye, û bihêzbûna xebata Kurd di Kurdistana Rojhilat de, bihêzbûna Kurdistana Başûr jî li pey xwe tîne.

Sêyem: Hewl dide ku rûçikê faşîstî ê xwe di bin navê şerê li dijî têkderên aramiyê de veşêre, û wisa nîşan bide ku girûpeke destçêkirî ê biyanî, dixwaze ku aramiya xelkê têk bide.

Di demekê de ku vê rejîmê herçend ku biyaveke tundajo ya Îslamî heye, lê di heman demê de, biyaveke şovînîstî –faşîstî heye, ku her cure serkutkariyekê derheq netewe û girûpên curbicur bi rê ve dibe, û dixwaze ku hemû civakê bi derba potîn û sernîze û girtinê, yekreng û yekdest bike, û her her neteweyek ku dengê nerazîbûnê bilind bike, yan di hemberî êrîşên rejîmê de dest bide çekê bona



bergiriya ji xwe, yan jî bi vî awayî bi destçêkiriyê biyaniyan bide naskirin. Di demekê de ku ew kesane, xortên serhildêr ê gel in, û bi çewtekariyên rejîmê pêngavên wan sist nabin.

Çarem: Rejîma Îslamî ya Tehranê, ku bi xwe girêdayî bi biyaniyan e, û di pêxema mana xwe de, hemû çûr û îmtiyazekê dide Rojava û Rojhilat û Rûsiyê, û Çîn û heya Borkînafaso jî, bi baskirina ji pirsa neteweyan, bi navê kêşeya sînoran dixwaze ku wisa nîşan bide, ku ew xebata neteweyan, û bi taybetî neteweya Kured , xebateke nerewa ya girêdayî bi biyaniyan e.
Eva di demekê de ye ku xebata hemû neteweyan di Îranê de, û xebata azadîxwazên nav neteweya Fars jî, xebateke hilkeliyê nav civatên xelkê de ye, û hekî ew xebatkarande dinmava welatên derve û di nava kom û komeleyên mirovdostane û nawendên navneteweyî de li pey piştevaniyê bigerin, eva ne tenê karekî nedirust encamp nedane, belkû erkeke mirovî ya tevalî ye, ku di asta cîhanî û herêmî de, alîkariya xelkê Îranê û neteweyên Îranê bidin, da ku rejîma Komara Îslamî ji nav bibin, rejîmek ku çavkaniya teror û têkderiyê û destdirêjiyê ye, li ser maf û xak û sênorê hemû gelên herêmê.

Bi vî awayî û di dawuyê de, dibe em pêdagiriyê bikin, ku berevajiyê propagende û hewlên Komara Îslamî, kêşe û pirsa neteweyan di Îranê de, ne tenê pirsa sînoran û tiştekî hînayî bo navxwe (hawirdekiraw, waridatî) nîne, û çavkaniya kêşeyan li derveyî sînoran nîne, belkû kêşe rast di Tehranê de ye, û ji beyta rêberiya rejîmê ve dest pê dike.

## Di heftiyekê de 1654 milîşên dijberê hikûmeta Yemenê hatine kuştin

**Di encama êrîşa balafiran de, milîşên Husiyan û hêzên girêdayî serkomarê ji kar dûrxistî derbên giran xwarine.**

Li gora nûçegihaniyan, balafirên hevalbendiya Erebî binkeyên milîşên Husî bi giranî bombebaran dikin, û di encamê de, di heftiyekê de, 1654 kesan jiyana xwe ji dest dane, û nêzî 2 hezar kesî jî birîndar bûne.

Balafirên hevalbendiya Erebî, herwisa binkeyên stratejîk ên milîşan di herêma Senhan cihê jidayîkbûna serkomarê vêdebirî ê Yemenê, û herêma Zehyan cihê akincîbûna rêberê Husiyan bi giranî, bombebaran kirin.

Husiyên Yemenê, ji aliyê Îranê ve, piştevanî madî û locîstîkî ji wan tê kirin, û çavdêrên siyasî li ser vê baweriyê ne, ku rejîma Îranê bi hêceta piştgiriya ji wan, dixwaze berdewam di derveyî sînorên xwe de çalakiyan bike, û bi vî rengî piştgiriya wan ji Husiyan, ne tenê kêşe û aloziyên di Yemenê de çareser nake, belkû roj bi rojê agirê şer geştir jî dike.



# Nerîna Lîderan



**Larîcan: “Dibe hêza me ya çêkirina bombeya navikî bigihîje 48 demjimêran”.**



Husêyn Dêhqan: **“Bikaranîna binkeya esmanî ya Hemedanê, pêwendiya wê bi parlementoyê re tuneye”.**



Gulen: **“Her endamekî me, ku dest di derbeyê de hebe, ezê wê ceza bikim”.**



Xamineyî: **“We dît ku çawan, hibijartin kirin hêcet, bona retkirina nizamê”.**

## Rûsiye bombeyên agirîn bi kar tîne

**Rûsiye li Heleb û Idlibê, bombeyên wisa bi kar tîne, ku qurbaniyan dişewitîne.**

Li gora rapora Rêkxirawa Çavdêr a Mafên Mirovan, Arteşa Sûriyê û Rûsiyê bombeyên agirîn bi karî tînin, ku termê qurbaniyan û derdora xwe dişewitîne.
Ew bombebaran jî, zêdetir di herêmên xeyrî leşkerî ên Sûriyê de têne encamdayîn, û ew yek jî binpêkirina eşkere ya mafên mirovan e.
Di 9 hefteyên borî de, aliyê kêm 18 caran ji çekên agirîn mifah hatiye wergirtin, ku êrîşa herî giran bo ser Heleb û Idlibê di roja 7’ê Tebaxê de bû.
Rêkxistina Çavdêr a Mafên Mirovan ragehandiye, ew welatên ku di roja 29’ê Tebaxê, di Jinêvê de, wê bi hev re rûnên, dibe bombebarana esmanî ya bi bombeyên agirîn di navçên ku sivîl tê de ne, şermezar bikin.

Rûsiye bona vê ku bi hêsanî bikare derbê li dijberên Beşar Esed bide, niha binkeya esmanî ya Hemedanê bi kar tîne. Herçend ku roja borî nûnerê “Îslamabada Xerb” ragehand ku bikaranîna binkeya Hemedanê, binpêkirina benda 146’ê ya yasaya bingehîn e, lê serokê meclisa rejîma Îranê ragehandiye ku em tenê alîkariya wan dikin, û me binkeya Hemedanê radestî wan nekiriye, û ew binke bi tewahî di bin çavdêriya hêza Îranê ya esmanî de ye.



## Rûsiye binkeya esmanî ya Hemedanê bo êrîşan bi kar tîne

**Arteşa Rûsiyê hejmarek ji balafirên bombavêj di binkeya esmanî ya Hemedanê de bi cih kirin, da ku vê binkê bona êrîşên xwe bi kar bîne.**

Roja borî 16’ê Tebaxê hate ragehandin ku balafirên Rûsî ji binkeya esmanî ya Hemedanê rabûn, û êrîşî ser DAÎŞ’ê kirin.

Ew nûçeya di demekê de belav dibe, ku nûnerê serkomarê Rûsiyê serdana Tehranê kiriye, û tê gotin behsa wan ya sereke li ser pirsa Sûriyê ye.

Rojnameyên Îranê jî digel baskirina ji vê hevdîtinê, bas ji nêzîkbûna Îran û Tirkiyê jî kirine, û raghandine ku Tirkiye û Îranê, boçûneke hevbeş li ser parastina yekîtiya xaka Sûriyê hene.
Wisa xuya dike, ku armanca Îran û Tirkiyê ji parastina yekîtiya xaka Sûriyê, têkbirina wê deshilata xwebirêveber ya Rojavaya Kurdistanê be, ku niha di Rojavaya Kurdistanê de hatiye avakirin.



Ji aliyekî din ve, çavdêrên siyasî li ser vê baweriyê ne ku Tirkiye dixwaze, bi dûrketina ji Amerîkayê û nêzîkbûna bi hevalbendiya Îran û Rûsiyê, ji bilî berjewendiyên aborî, hem li dijî tevgera Kurd armancên xwe bipêke, û hemi jî Amerîkayê bixe bin zexta zêdetir, da ku dev ji piştgiriya deshilata xwebirêveber ya Rojavaya Kurdistanê berde.

## Tramp: Komara Îslamiya Îranê mezintirîn palpiştê terorîzmê ye

**Donal Tramp di dawî axivtina xwe de ragehand ku, ewê bi hemû hêza xwe, li dijî îslamxwazî û terorîzmê bisekine, ku Îran piştgiriya wê dike.**

Roja Duşemiyê 15’ê Tebaxê, Donal Tramp di axivtinekê de, li herêma Ohayo ragehand: “Hekî ew bikare di hilbijartinên bê de, serkevtinê bi dest bixe, ew ê şerekî hemû aliyane ya leşkerî, Îtila’atî, bîrûbawerî (eqîdetî) û aborî li dijî tundreviya Îslamî dest pê bike, û mil bi mile hevalbendên xwe di Rojhilata Navîn de, wê li dijî girûpên tundrev ên Îslamî di vê navçeyê de wê bisekine.

Berendamê Komarîxwazan herwisa siyasetên Obama bi tundî rexne kirin, û got: “Îran palpiştê herî mezin ê terorîzmê ye di cîhanê de, ku piştî lihevkirina navikî karî ji aliyekî ve 150 milyardî, û ji aliyekî din ve 400 milyard Dolarî, bacê ji Obama wergire, û vî pareyî bixe xizmeta terorîzma Îslamî de.



Navbirî herwisa got ku, siyasetên şaş ên Obama derheq Îranê, wisa kir, ku Komara Îslamî bikare, ji bilî bihêzkirina tundrevan, zêdetir bi bidestxistina çeka navikî nêzîk bibe.

Pêştir jî Tramp, ragehnadibû ku Kilînton û Obama bingehdarêjê DAÎŞ’ê ne.

## Binpêkirina mafê mirovan ji aliyê Îran û Rûsiyê ve li Sûriyayê



Sabir Ebdullahîzad

Bikaranîna bombeyên agirîn ji aliyê dewleta Rûsiya û Sûriyayê li dijî sivîlan, bi piştevaniya rasterast a Komara Îslamî binpêkirina rêzikên hiqûqa şer an jî bi wateyeke din mafê mirovan e.

Her wekî ku ji aliyê Rêkxirawa Çavdêriya Mafên Mirovan ve hatiye tesbîtkirin, Rûsiyayê bi mifawergirtin ji yek ji pêgehên hêza hewayî a Îranê, êrîşên hewayî kiriye ser şarên weke Heleb û Idlibê, û bombeyên agirîn bikar aniye. Rêzikên bingehîn yên hiqûqa mirovdostane bikaranîna wan cureyên çekan li dijî sivîlan qedexe û li dijî navendên leşkerî sînordar dike.




Bikaranîna çekên agirîn binpêkirina benda 1'ê a xala 3'ê ya hevpar a çar konvansiyonên Cenevê (1949), xalên 14 û 27 a konvansiyona çarê a Cenevê û protokola sêyem a konvansiyona taybet bi qedexe û sînordarkirina bikaranîna hin çekên asayî(1980) ye.

Ji aliyê din ve, bikaranîna wan cureyên çekan li gor xala 7'ê a rêziknameya Dadgeha Ceza ya Navdewletî "sûç li dijî mirovahiyê" û li gor xala 8'ê "Sûça/Tawana Şer" tê naskirin. Herçenda ku rejîma Îranê hêj konvansiyona taybet bi qedexe û sînordarkirina bikaranîna hin çekên asayî nepejirandiye, lê li gor rêzikên hiqûqa mirovdostane ya orfî û bi taybet çar konvansiyonên Cenevê(1949), beşdariya rasterast a îranê di vê kiryarê de, weke binpêkirina Rêzikên Hiqûqa mirovdostane dihête nasîn, û wê bibe sebebê berpirsiyariya navdewletî a rejîmê.

## Bûyerên Kar, berdewam jiyana hevwelatiyan ji wan destine

**Dabînnekirina ewlehiya canî di dema kar li parêzgeha Kirmaşanê de, berdewam jiyana hevwelatiyan ji wan destine.**



Li gora rapora Ajansa Nûçegihaniya Kurdpa, di Buhara îsal de 14 kedkarên Kurd li parêzgeha Kirmaşanê bi sedema bûyerên kar jiyan axwe ji dest dane. Ew rêjeya li çav sala borî di heman vê demê de, %16 zêde kiriye.
Berçavnegirtina rêûşûnên xweparastinê û nebûna aysayayên pêwendîdar, her sal bûyerên bi vî rengî jê dikevin.
Di rapora herî nû ya dezgeha pizişkê yasayî ya parêzgeha Kirmaşanê de, qala birîndarbûna 105 kedkaran di 3 mehên yekem ya îsal de hatiye kirin. Sala borî rêjeya qurbaniyên vê bûyerê di buharê de12 kes bûn.

Li gora boçûna çalakên kedkarî li Kirmaşanê, fêrkarî bo xweparastinê bi taybetî bo kedkar û karsazan di Îranê de gellek kêm e.

Wezareta Kar ya Îranê, sala borî ragehand ku tenê %10 ji kuştiyên bûyerên kar xwedî bîme ne.

## Li Ehwazê xortekî xwe şewitand

**Kurdistanmedia: Roja Înê 19'ê Tebaxê li Ehwazê xortekî Ereb bi navê "Elî Sincêrî" bi nîşaneya nîşandana nerazîbûna xwe li hemberî li ser kar derxistina xwe, xwe şewitand.**



Elî Sincêrî yê 21 salî, piştî vê ku ji şirketa Petrolê ya bi navê "Maron" hatibû derxistin, bi nîşaneya nîşandana nerazîbûna xwe li hemberî vê biryara karbidestên şirketê, li ber deriyê şirketa navbirî agirî berda cesteyê xwe û xwe şewitand. Hatiye zanîn ku Elî bi karê berdewam, mijûlî komkirina têçûya pêkanîna jiyana hevpar bûye.

Hate ragehandin ku eva yekemîn keysa xwe şewitandina hemwelatiyên Ereb ên Ehwaz û Xûzistanê nine û roja 18'ê Pûşperê jî keseke Ereb yê 45 salî, ku xwediyê 5 zarokan bûye û ji rêya firotina ava vexwarinê nanê rojê bo zarokên xwe peyda dikir, bi sedema hejarî û destengiyê, li taxa Melaşiye ya Ehwazê xwe şewitand û dawî bi jiyana xwe anî.
Her di vê derheqe de roja 7'ê Cozerdanê jî Îsma'îl Şawêrdî, kedkarê bajêrvaniya bajarê felahiyê, bi sedema nedana mûçeya wî ya 6 heyvan, xwe şewitand û demûdest jiyana xwe jidest da.

Îsma'îl Şawêrdî yê 30 salî jî xwediyê jin û zarokan bû û peydakirina têçûya jiyana malbatê li stûyê wî bû.
Sala derbazbûyî ji destfiroşekî Ereb li Ehwazê, bi sedema destbiserdegirtina kelûpelên wî ji aliyê kirêgirtiyên rejîmê ve, xwe şewitand.

## Xincî daristanan, rejîm seyrangehên Kurdistanê jî ji nav dibe

**Serbarê bidûreçûn û hewlên zêde ên jîngehparêz û karbidestên deverê bona rêgirtin ji jinavbirina tavgeha "Sûle Dûkel"ê , lê karbidestên rejîmê bê guhdana bi daxwaza xelkê, pirojeya çêkirina Wizegeha Elektrîkê (Nîrogeha Berqê) ya 4 Mêgawatî li ser vê tavgehê berdewam dikin.**

Rejîma Îslamî ya Îranê, xincî şevitandina çêrîngeh û daristanên Kurdistanê, vê carê li jêr navê avakirina wizegeheke elektrîkê, dest avêtiye xirabkirina tavgeha "Sûle Dûkel"ê li gundê Sûle Dûkel a ser bi devera Mirgewer ya Urmiyê.

Serbarê wê ku karbidestên rejîma dijî jîngeh ya Îranê îdî'a dikin, avakirina vê wizegehê bandorê naxe ser Sûle Dûkelê, lê weke tê zanîn bona avakirina vê wizegehê hewce ye ku tavge bê jinavbirin û eva jî bûye sedema nîgeraniya xelkê deverê.
Jiber ku tavgeha Sûle Dûkel yek ji seyrangehên herî balkêş yê Kurdistan û Îranê ye ku salane bi hezaran kes li seranserî Kurdistan û Îranê, bi armanca derbazkirina demeke xweş serdanê dikin.

Bê guman jinavbirina tavgeha Sûle Dûkelê serbarê vê ku dibe sedem ku jîngeha deverê bi tevahî were jinavçûn û herweh kerta kiştûkal û cotkariya deverê jî, digel kêmasiyên gellek metirsîdar berbirû dibe, tenanet bandorê dixe ser ava vexwarinê ya dever û gundên derdorê, û xelkê deverê bi giştî digel kêmaviyê berbirû dibin.

Tavgeha Sûle Dûkel li biniya çiyayê Dalamper hiketiye, û bi sedema vê ku ava çem li bilindahiyek gellek bilind tê xwar, û li kevirekî mezin dikeve, serbarê dengek bihêz û bilind, av weke dûkel lê tê, û geliyekî dike mij û dûman, lewra bi tavgeha Sûle Dûkel hatiye binavkirin.



## Rojane 8 kes di Îranê de bi madeyên hişber canê xwe ji dest didin

**Cîgirê Wezîrê ya Saxlemiya rejîma Îslamî ya Îranê ragehand ku, li gorî raporên rêkxistina pizîşka yasayî, di Îranê de rojane 8 kes bi sedema bikaranî û îtiyada bi madeyên hişber canê xwe jidest didin, û 50%'ê ji bikarberên wan madeyan jî, tûşî nesaxiya "Hêpatît", û 14%ê tûşî nesaxiya "HIV" ne.**

Îrec Herîrçy ji rêya ÎSNA yê ve ragehand ku, serbarê hewlên di pêxema kêmkirina xisarên bikaranîna madeyên Hişber, niha Heb a Mêtadol cihê madeyên hişber di Îranê de girtiye û eva ji bûye sedema nîgeraniya wezareta saxlemiyê.

Li gorî serhejmêriya nawenda xebata li dijî madeyên hişber di Îranê de, di salê de 500 ton madeyên hişber di Îranê de tên bikaranîn û temenê bikarberên wan madeyan jî gihiştiye 15 saliyê, û herweha di 3 salên derbazbûyî de îtiyar di nava jinan de 3 hemberî bûye.

Eva di demekî de ye ku rejîma melayan wusa nîşan dide ku, xebatê li dijî madeyên hişber dike, lê bi xwe yek ji çavkaniyên herî serek ên perepêdana bi vê diyardeya qirêj ya civakî ye bi taybetî di herêmên Kurdistanî de.



## Li Îranê rehmê bi zarokên kar jî nakin

**Şaredariya parêzgeha Kirmaşanê bi alîkariya rêkxirawa "Bêhzîstî", pirça serê zarokên kar di vî bajarî de ditiraşe.**

Li gora nûçeya gihîştî bi Ajansa Kurdpa, di van çend rojên borî de, şaredariya bajarê Kirmaşanê, bi alîkariya hinek ji rêkxirawên dewletî di vê parêzgehê de, serê zarokên kar jî tiraşiye.

Ew zarok ku ji bo bijîwa jiyana xwe û malbatên xwe li ser kolanan, kar dikin, temenê wan di bin 10 saliyê de bûye.
Yek ji van zarokan ku li ser çarriyan, mijûlî firotina destmal kaxeziyan bûye, bas ji vê kiriye, ku "Karbidestên yek ji rêkxirawên hikûmetî hatin, û hemû zarok kom kirin, û serê wan tiraşîn, bona vê ku êdî li ser kolanan, kar nekin".

Li gora amaran, rêjeya zarokên kar li parêzgeha Kirmaşanê de, nêzî hezar kesî dibin.
Di meha Befranbara sala 2013'an de, di xwendingeha "Şêx Şeltût" a bajarê Merîwanê mamostayekî vê xwendingeha bona hevderdîkirina digel dersxwanê xwe, pirça serê xwe tiraşî. Navbirî sedema vê helwesta xwe vegerande ser vê ku, pirça dersxwanê wî diveriya, û zarokên din sivikatî pê dikirin, lewra jî wî ew kar kir.

Komara Îslamiya Îranê bona rûxandina morala xelkê her pîlanekê bi kar tîne, û sertiraşîna zarokan jî, bona rûxandina morala wan e.



## Mala helbestvanê navdar ê Kurd Hêmin Mûkiryanî, li kolana Behmen a bajarê Mahabad a Rojhilata Kurdistanê.





**Hêmin Mûkiryanî ku weke Mam Hêmin dihate naskirin, heta dawiya jiyana xwe di vê male de jiyaye. Niha Şaredariya Mahabadê mala wî kiriye û mûzexaneyek ji bo arşîvkirin û nimayîşkirina destnivîs û kelûpelên Mamosta Hêmin Mûkiryanî, terxan kiriye.**

## Qubadî projeya Hz. Omer red kir!

**Derhênerê kurd Behman Qubadî, pêşniyara Mîrnişînên Erebî yên Yekbûyî ya çêkirina fîlma derbarê jiyana Hz. Omer de red kir.**

**Qubadî ji Rûdawê re diyar kir ku Mîrnişînên Erebî yên Yekbûyîji wî xwestiye ku derhêneriya fîlma jiyana Hz. Omer bike, lî wî ew pêşniyar qebûl nekiriye.**

**Qubadî wiha got: "Derbarê wê mijarê de zêde agahiyên min nîne. Çend projeyên min li ser şervan û lehengên Kurdistanê hene. Li ser vê mijarê zaname. Ezê li ser wan fîlmekê amade bikim ji ber wê yekê jî bo çêkirina fîlemekê pêwîst nake ez herim welateke Ereb."**

**Behmen Qubadî kî ye?**






**Qubadî di sala 1969'an de li bajarê Baneyê, li Rojhilata Kurdistanê hatiye dinê.**

**Di dema perwerdebûna xwe de di radyoyeke de xebitî. Di 12 saliya xwe de li bajarê Sineyê bi amatorî tevlî koma derhenerên filman bû, û bi wan re kurtefîlm çêkir.**

**Di navbera salên 1995-1999'an derhêneriya 10 kurtefîlmên ku di pêşbaziyên netewî û navnetewî de xelat stendiye, kir. Yek ji van fîlma "Jiyana li Mijê" di Festîvala "Clermont-Ferrand" (li Fransa) Xelata Juriya Taybet stend.**

**Di sala 1999'an di fîlma derhêner Ebas Kiyarostemî ya "Ba wê me hilde" asîstantiya sereke kir û di fîlma Semîra Mexmelbaf ya Textê Reş de jî yek ji rolên sereke lîst.**

**Fîlma Qubadî ya Dema Hespên Serxweş di sala 2000'î de di Festivala "Cannes"ê ya Filmê de Xelata Kamereya Zêr, Xelata Sînemaya Ciwan û xelata PIPRESCI girt.**

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Ma hûn dizanin ji bo çi yên mezin mizin in? Ji ber ku em li ser jûniyan in. Divê êdî em rabin!
**Stirner**

Peyayên mezin ew in, ku guh nadin mezinahiya xwe.
**Shakespeare**

Hinek mezin tên dinyayê, hinek mezintiyê bi dest dixin, mezintî jî li hinekan tê.
**M. Aurelius**

Cihê ku zelaltî, başî û rastî lê tunebe, mezinahî jî lê peyda nabe.
**Tolstoy**

Zanîn dikane mirov têxe ser rêne çewt, lê bersiva vê zanebûneke hê çêtir û hê bêtir e.
**Asimov**

Hin mirov hene bi zirecêba gerdûnê dizanin, lê xwe nas nakin.
**La Fontaine**

Hemû tiştên ez dizanim, bi tiştekî nizanîbûna min e.
**Sokrates**

Hesin bi hesin, zana jî bi zana dizane.
**Talmud**

Her peyakî mezin ne peyakî zane, her peyakî zane jî ne peyakî mezin e.
**Holmes**

# Ziman



**Beşa 3.** Dema guhdarîkirin û xwendinê

## Xurekên welatê me



**Elîf:** Zebeşên kîjan bajarî xweş in?
**Rêzan:** Zebeşên Diyarbekirê xweş in.
**Elîf:** Gilyazên kîjan bajarî navdar in?
**Rêzan:** Gilyazên Mêrdînê gelekî navdar in.
**Elîf:** Penîrê Wanê çawa ye?
**Rêzan:** Penîrê Wanê bi sîrik e.
**Elîf:** Fistiqên kîjan bajaran biçêj in?
**Rêzan:** Fistiqên Entab û Sêrtê biçêj in.
**Elîf:** Te hingivê Colemêrgê xwariye?
**Rêzan:** Erê min xwariye. Hingivê Colemêrgê gelek xweş e.
**Elîf:** Mişmişên herî xweş li ku çê dibin?
**Rêzan:** Mişmişên herî xweş li Meletiyê çê dibin.
**Elîf:** Dema ku tu biçî Bedlîsê tu dê li wir çi bixwî?
**Rêzan:** Ez dê biryanê bixwim.

95

# Tiştonek



A: Mahir Berwarî

1.Çûme serê banekî, min berêxwe da aqarekî, 7 kilîlên di devê marekî.
Çûme rêkekê, rêk li darekê, 7 kilîlên di devê marekî.

2. Çûme rêlewarekî, birim serê darekî, kirme qaziyê şarekî.

3. Li ser destan dişimite, dikeve çav dişewite.

4. Befir li beroja dihêt, gijik li nizara. (!)

5. Her roj li dibistan e, lê tiştek nizane.

6. Gayê li nav govê nivistî, pezê li dûv qunê ve damiştî.

7. Hildidim digirî, datînim aşt dibî.
Hildigirim digirî, datînim nagirî.

8. Tiştekê min heye çiqas bixwe, têr nabe.
- Sê birane, êk diçit nahêteve, êk dimirit narabiteve, êkî hindî bîdenê têrnabiteve.

9. Mele ye mele nîn e, aqilmend e, ruh`tê nîn e.
- Pênc di saxin, na axivin, êk miriye diaxivit.
- Tiştek e hemî di binra diçin.
- Ximav û xar, lastîk û dar, tilî lê hewar, li kax`ezê bar, tîpên yar û har, digirin rêz û tar.

10. Çini çini hezar çini, Meri dûnin hilçini.
- Şuva sipî, xeta reş.
- Wekî pirpel e, nivîs lê bel e, bi bend û bal e, ji te re heval e.

**Xwendevanên hêja!**
**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

◆ Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (284)












**endam û alîgirên PDKÎ bi boneya 25’ê Gelawêjê di piraniya gund û bajarên Rojhilata Kurdistanê kar û çalakiya teblîxî bi rê ve birin**





